# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê



**Bultena agahdariyê N° 147 Tîrmeh 2017**

Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

## ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

## HEZÏRAN 2017

### KONFÊRANS

***25.06.2017 : Pirsên li ser Koçbûna ber bi Beljîka û Ewropa***



**François Sant'Angelo**, yasanas (huqûqnas) li bal UNIA, Navenda Entêr-Fêdêral Ji Bo Wekheviya Bextan, ji me re konfêransek li ser koçbûna li Beljîka û Ewropa kir. Ev e kurteya wê :

Diyardeya koçbûnê ji demên kevnar de heye. Mirov diviya bûn ku li ciyekî bigerrin ji bo ku bijîn yan jî ji tundî û lidûçûnên merivên din birevin. Borana (krîz) penaberan a 2015 derket, ji bo ku bi sed hezaran kesên ji derveyî Ewropa tecrube dikin ku bi riya Tirkiye û Lîbya xwe bigihînin Ewropa. Piraniya caran, koçbûna wan bi awakî tevlihev û bi riya qaçaxçiyên ku ji vê tevliheviyê û girtina sînoran ji aliyê çend welatên ewropî kelk digirin (istifade dikin) dibe. Erkê (kar, wezîfe) pêşwazîkirina van penaberan (ku

gelek caran di rê de difetisin) diveke ser welatên pêşîn, weka Îtalya û Yûnanistan. Divê ku meriv zanibe ku lihevkirina Yekîtiya Ewropî-Tirkiyê ji hertiştî re çare ne dit. Bitenê 6% ji penaberan digihêjin Ewropa.

Eger em werin jimarên encama vê diyardeya koçbûnê li Beljîka, ew di 2016 de weha bûn (ew ji aliyê rêxistina Myria hatine dayîn) :

- 28.771 vîzayên rûniştina demdirêj ji derhatiyên welatên din re hatin dayîn (50% ji bo civandina malbatê, 28% ji bo xwendinê û 15% ji bo kar).
- Di koçbûna yasayî (lêgal) de, 5 welatên pêşîn ev in : Rûmanya, Fransa, Hollanda, Polonya û Îtalya.
- Sûrî, Afxanî û Iraqî 3 netewahiyên sereke ne ku mafê penaberiyê dixwazin.

- Durustkirina rewşan (légalisation) ji bo sedemên mirovî û bijîjkî (tibbî) her ku diçe kêmtir dibe.
- 1.182 vîzayên mirovî hatine dayîn. Ji wan 77% ji bo demeke kurt in. Piraniya wan ji bo Sûriyan e.

Ev tevlihevî û necomerdiya hin welatên ewroî, ku dibêjin ku Ewropa sipî û fille hatiye dagîr (işgal) kirin, bûn sedema bilindbûna nijadparêziyê (racisme), ku ji aliyê hin partiyên dêmagog û rastê tûj, ku nemaze kesên gelek cuhan dikişînin, tê ajotin. Ev guherîna rewşê endîşeyê tîne û divê ku meriv gelek hişyar be.

## BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***18.06.2017 : Pêşangeheke hundera dest a îranî***
Her du xuşkên kurd ên Îranê, Azar û Azadeh Najîbî, ku cillên şano (théâtre) diafirînin, pêşangeheke sol, çenteyên pişt û gewheran, ku li ser wan motîfên ji ciyên cihê yên Îranê hene û marka wan Şavan e, raxistin. Pêşangeh li Aran Art Gallery, ku Azadeh xwediya wê ye û ku li nêzîkî Grand-Place a Bruksêlê ye, bû.

**24. 06. 2017 : Çêjna De Markten**
Em êvareke gelek xweş li hewşa navenda çandî ya flamanî De Markten jiyan. Li ber gelek temaşevanan, komên muzîk, dîlan û strananan, ên brazîlî, afrîqî û flamanî li dû hevdu lîzt û rêsêpsyonek (xwarineke sivik) hat pêşkêş kirin.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKÊ DE

***<u>Mûş</u>***

***Di 03 Hezîran 2017 de***, êvarê, tevgereke leşkerî li gundê Sağlıkê dest pê kir. 5 parêzerên gund (mîlîsen kurdî ku bi hukûmeta tirkî re kar dikin) birîndar bûn. Roja din, parêzgarê (walî) Mûşê qedexekirina hatûçûnê li vê navçeyê daxuyand (îlan kir).
*(rudaw.net, 04.06.2017)*

***Çewlik (Bingöl) û Amed (Diyarbekir)***
Di çarçeveya tevgerên li dijî PKKê de, li 30 gundên Çewlikê û 10 gundên bajarokê Pasûsê, yê girêdayî Amedî, qedexekirina hatûçûnê hat daxuyandin.

***Di 11 Hezîran de***, pevçûn di navbera PKK û leşkerê tirkî li bajarokê Dara Hênê, yê Çewlikê, bûn.

***Di 12 Hezîran de***, bombeyek li heman bajarokî, li ser erebeyeke leşkerî, teqiya. Serbazek (esker) hat kuştin. Leşkerê tirkî tevgereke fireh li dora vî ciyî daxuyand.
*(rudaw.net, 05.06.2017)*

***Dersîm***
***Di 09 Hezîran de***, erebeyeke bombekirî li bendaveke leşkerê tirkî, li bajarokê Bekirhanê, yê girêdayî Kozlukê, li Elihê (Batman), li navçeya Dersîmê, teqiya. 3 kes, ku ji wan 2 serbaz, birîndar bûn.

***Di 13 Hezîran de***, bi şev, hêzên ewlehiyê yên tirkî riya Dersîm-Pilemûr-Erzincanê girt û dest bi tevgerên erdî û ezmanî, li navçeya Zaxê, li newala Pilemûrê, kir. Piştre, şerr di navbera PKK û leşkerê tirkî de dest pê kir. 2 sîvîl birîndar bûn û dibe ku çend PKK jî hatibin kuştin. Lê vê partiyê tu daxuyanî li ser vê yekê ne da. _

***Di 22 Hezîran de***, PKKê riya di navbera Dersîm û Pilemûrê de birrî û agir berda barhilgerekî (kamyon) tijje komir. Piştî vê yekê, servîsên ewlehiyê yên tirkî hatûçûn qedexe kir û dest bi tevgereke ezmanî û erdî kir.
*(rudaw.net, 09,14 û 23.06.2017)*

***Colemêrg (Hakkari)***
***Di 19 Hezîran de***, karwaneke leşkerê tirkî ji bajarokê Çelê, yê girêdayî Colemêrgê, derbas dibû, ji bo ku biçe Wanê (Van). Ew bi rokêtan hat êrîş kirin. Serbazek hat kuştin û 6 jî birîndar bûn.

Li bajarokê Şemzînanê, leşkerê tirkî hat bombe kirin. Serbazek hat kuştin. Tevgereke mezzin a leşkerî dest pê kir.
*(rudaw.net, 20 û 26.06.2017)*
***Şirnex (Şırnak)***
***Di 19 Hezîran de***, pevçûn li bajarokê Qilabanê, yê girêdayî Şirnexê, di navbera PKK û leşkerê tirkî de bûn. 2 parêzvanên gund (mîlîsên kurdî ku hevkariya leşkerê tirkî dikin) û serbazekî tirk birîndar bûn. Tevgera leşkerî li navçeyê dajo (dewam dike).
*(rudaw.net, 20.06.2017)*

***Bedlîs (Bitlis)***
Pevçûn di navbera PKK û leşkerê tirkî de li bajarokê Tetwanê, yê girêdayî Bedlîsê, bûn. 2 serbaz hatin kuştin û 2 jî birîndar bûn.

***Di 22 Hezîran de***, pevçûnên din li Anaderê, yê girêdayî Tetwanê, bûn. 3 serbaz birîndar bûn.
*(rudaw.net, 22.06.2017)*

***Trabzon***
Piştî pevçûnên di navbera leşkerê tirkî û PKKê de, mînek li ser karwaneke leşkerî li bajarokê Maçka, yê

girêdayî Trabzonê, teqiya. 2 serbaz birîndar bûn. Tevgera leşkerî li navçeyê dajo.
*(rudaw.net, 25.06.2017)*

## OSMAN BAYDEMIR TÊ AZAD KIRIN

***Di 02 Hezîran 2017 de***, parlementerê Riha (Urfa), yê partiya kurdî HDP, Osman Baydemir, piştî ku ji aliyê dadgehê hat jê pirsîn, hat azad kirin. Ew bi beşdarbûna çalakiyekê, di 03.11.2012 de li Amedê, û bi rexnekirina hukûmetê hati bû tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 02.06.2017)*

## RAMYARÊN KURD TÊN RAGIRTIN

***Di 14 Hezîran 2017 de***, li Amedê hêzên polîs û ewlehiyê ketin nav malên gelek endam û birêvebirên partiyên ramyariyî (siyasî) yên kurdî : Tevgera Jinên Azad (TJA), Kongreya Civaka Dêmokratîk (KCD), Partiya Herêmên Dêmokratîk (DBP) û Kongreya Dêmokratîk a Gelan (HDK).
*(rudaw.net, 14.06.2017)*

## 10.000 "HDP" Û "DBP" LI ZÎNDANÊ

Li Tirkiye û Kurdistana Tirkiyê, nêzîkî 10.000 endamên du partiyên kurdî, HDP û DBP, li zînanan in. Birêvebirên HDP dibêjin ku hukûmeta tirkî ramyara (siyaset) bêdengiya Kurdan bi cî tîne.
*(rudaw.net, 21.06.2017)*

## "CHP"YA TIRKÎ SEREDANA "HDP"YA KURDÎ DIKE

***Di 09 Hezîran de***, serokê partiya tirkî ya dijberiyê, CHP, Kemal Kılıçdaroğlu, tevî şandekê çû seredana partiya kurdî HDP, li Ankara. Ew tê de rastî hevserok Serpil Kemalbay hat. Piştre, her du konfêranseke çapemeniyê pêk anî. Kılıçdaroğlu ji hukûmeta tirkî xwest ku parlementerên kurd ên girtî azad bike û Kemalbay ev seredan girîng dît û hêvî kir ku rasthatinên wan bajon.
*(rudaw.net, 09.06.2017)*

## RAPPORA WEQFA MAFÊN MIROV

Weqfa Mafên Mirov li Tirkiyê rappora xwe ya dawîn weşand û got ku di navbera 16 Tebax 2015 û 01 Hezîran 2017 de, hukûmeta tirkî 218 caran biryar stend ku hatûçûnê li 10 bajaran û 43 bajarokan qedexe bike û hin cî weka *"navçeyên qedexe"* daxuyandin. Û wê got jî ku ev yek bandoreke (te'sîr) neyênî (xerab) li ser milyonek û 809 kesan kir.

Tevgerên leşkerî li navçeyên weka Wan, Agirî, Şirnex, Çewlik, Colemêrg û Dersîmê dajon.
*(rudaw.net, 02.06.2017)*

## 92mîn BÎRANÎNA ŞÊX SEÎD



***Di 28 Hezîran 2017 de***, bi hinceta (munasebet) 92mîn bîranîna bidarvekirina (daleqandin) Şêx Seîd û 47 hevalên wî ji aliyê hukûmeta tirkî, piştî serhildana 1925, 5 partî û rêxistinên kurdî yên Tirkiyê daxuyaniyeke hevbeş kir. Wan tê de anî bîran ku dewleta tirkî gorên Şêx Seîd û hevalên wî veşartin û heta nuha mafên Kurdan hatine inkar kirin. Wan ji hukûmeta tirkî xwest ku ciyên van goran nîşan bide, buhurandin (efû) ji gelê kurd, ji bo pelixandina wî ku heta îro dajo, bixwaze û mafên wî bide wî. Li dawiyê, wan dilniya (te'kîd) kir ku ewê tucar gelê kurd, li her 4 perçeyên Kurdistanê, têkoşîna xwe ranewestîne û dîroka xwe ji bîr neke. Wan dilniya kir ku ewê ji bo dîtina van goran û dayîna ciyê wan ê rast xebat bikin.

Ev 5 partî ev bûn : Hereketa Azadî, Partiya Azadiya Kurdistan (PAK), Pariya Dêmokrat a Kurdistan (PDK-T), Partiya Azadî û Sosyalîsmê (OSP), Partiya Sosyalîst a Kurdistan (PSK).
*(rudaw.net, 29.06.2017)*

## KARGEHEKE CILLAN JI 15 WELATAN RE DIFIROŞE

Li Amedê (Diyarbekir) kargeheke (fabrîka) cillan, bi navê "Jiber", ji bo zarok, jin û zilaman heye. Ew berê 20 salan, li kîlerekê (binderd) 250 m2 hati bû ava kirin. Nuha, aqara (mesahe) wê 7.000 m2 ye. 300 kes tê de kar dikin û ew ji 15 welatan re, ku ji wan Kurdistana Iraqê, difiroşe. Nuha "Jiber" yek ji baştirîn markayên Kurdistan û Tirkiyê ye.
*(rudaw.net, 02.06.2017)*

# KURDISTANA IRAQÊ

## SERXWEBÛNA KURDISTANÊ

***Rêfêranduma 25.09.2017***
***Di 07 Hezîran 2017 de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, bi berpisiyarên parlement û hukûmeta Kurdistanê, û bi serok û cîgirê serokê encumena bilind a hilbijartinên Kurdistanê, re civiya. Biryarên jêrin hatin stendin :

***Di 25.09.2017 de***, ewê li Kurdistanê û li navçeyên kurdî ku li derveyî desthilata Kurdistanê ne (Mûsil û Kerkûk) giştpirsiyek (rêfêrandum) li ser serxwebûna wî ji Iraqê bibe.

Heta mêjuya (tarîx) vê giştpirsiyê, ewê hemî partiyên ramyariyî (siyasî) ji bo geşkirina parlementê û çarekirina pirsên ramyariyî bixebitin.

Baştirkirina asta (sewiye) jiyana xelk û çarekirina pirsên aborî.

Ewê encumeneke bilind, li bin birêvebiriya serok Mesûd Berzanî, were damezrandin. Di 12 Hezîran 2017 de, ewê partiyên ramyariyî nimînendeyên (temsîlcî) xwe yên encumenên cihê yên taybetî, ji bo pêkanîna rêfêrandumê, dest nîşan bidin.
*(avestakurd.net, 08.06.2017)*

***Civîn bi balyozên Yekîtiya Ewropî re***
***Di 22 Hezîran 2017 de***, serok Mesûd Berzanî balyoz (sefîr) û konsulên welatên ku endamên Yekîtiya Ewropa ne vexwendin : Balyozên Beljîka û Polonya li Iraqê, nimînendeyê Yekîtiya Ewropî li Iraqê Patrick Simonnet, nimînendeyên balyozxaneyên Italya û Ispanya, konsulên Almanya, Fransa û Hollanda, û nimînendeyên konsulxaneyên Britanya Mezzin, Çêkya û Rûmanya li Hewlêrê.

Ji aliyê Kurdistanê, nimînendeyên van partiyan hati bûn vexwendin : PDK (Partî Dêmokratî Kurdistan), Y.N.K. (Yekîtî Niştimanî Kurdistan), Tevgera Islamî ya Kurdistanê, Partiya Zehmetkêşên Kurdistan, Partiya Sosyalîst a Dêmokrat a Kurdistan û nimînedeyên partiyên tirkmenî û fille yên Kurdistanê.

Van mêvanan piştgiriya Yekîtiya Ewropî ji Herêma Kurdistanê û Iraqê re dilniya (te'kîd) kir. Nimînendeyê Yekîtiya Ewropî, Patrick Simonnet, pesna gelê Kurdistanê ji bo têkoşîna wî li dijî têrrorê û pêşwazîkirina penaberan, û pesna Pêşmergeyên mêrxas ku canê xwe fida dikin, da.

Serok Berzanî ji wan re sedemên ku Kurd dewleteke serbixwe dixwazin gotin : Ji 1921 heta 2003, 4.500 gundên Kurdistanê hatin têk dan, 180.000 cuhanên kurd bûn qurbanên Enfalê (nijadkujiya Saddam Huseyn) û çarenivîsa (qeder) wan ne xuya ye. 12.000 cuhanên kurd ên feylî (şîî) û 8.000 endamên êla (eşîr) Berzanî hunda bûn. Bi ser de jî, çekkên kîmyayî li Kurdistanê hatin bi kar anîn û bajarê Halabca bû sembola vê tawanê (cinayet).

Di dewama axaftina xwe de, Berzanî got ku piştî 1991, gelê Kurdistanê xwest ku, bi navê yekîtiya Iraqê, rûpeleke nuh veke û bi van kesên ku li dijî wî ev nijakujî pêk anî re giftûgo kir. Lê, mixabin, ev tecrube jî tu encam ne da, ji bo ku desthilata Bexdadê li ser bingeha inkarkirin û tawanbarkirina gelê Kurdistanê ava bûye. Piştî 2003, Kurdan bi hemî hêzên xwe tecrube kir ku Iraqeke dêmokratîk û fêdêral ava bikin. Lê, mafên wan di destûra iraqî de hatin perçiqandin.

Berzanî got ku mafê gelê kurd ê çarenivîsê heye û ku li ser vê babetê (mewzû') ewê giftûgo di navbera Herêma Kurdistanê û Bexdadê de bibin, ji bo ku pirs bi aşîtiyane bên çare kirin. Û wî got jî ku di şerrê li

dijî Dewleta Islamî de, gelê kurd baceke mezzin da. Li gel lihevkirinekê di navbera her du aliyan de, Bexdad ambaro li ser dayîna çekkan ji Kurdistanê re danî. Ev bû yek ji sedemên nijadkujiya Kurdên ji ola êzdî.
*(rudaw.net, 22.06.2017)*

***Beşdarbûna Kurdên derve***
Serokê encumena bilind a giştpirsiyê, Hendrên Muhammed, daxuyand ku ewê nivîsgehên (buro) dengdanê li Bexdadê û li navçeyên kurdî ku ji derveyî desthilata Kurdistanê ne werin vekirin. Ji bo Kurdên ku li derve (Ewropa, Amerîka …) dijîn jî, pergaleke (sîstêm) êlêktronîk nuha tê danîn.
*(rudaw.net, 22.06.2017)*

## *BERTEK (RÊAKSYON) LI CIHANÊ*

***Kurd***
Tevahiya Kurdan li cihanê dilşadiya xwe ya mezzin û hêviya xwe nîşan dan.

***Bexdad***
***Di 09 Hezîran de***, berdevkê serokwezîrê iraqî, Se'dî Hedîsî, got ku divê ku hemî biryarên li ser paşeroja Iraqê li gora destûrê bin.
*(rudaw.net, 09.06.2017)*

***Tirkiye***
Wezareta tirkî ya karên devre daxuyand ku ev biryar şaşiyeke mezzin e û ku ramyariya (siyaset) Tirkiyê li ser Iraqê ew e ku axa vî welatê perçe nebe û ku yekîtiya ramyariyî were parastin.

Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan li ser vê yekê li civîna partiya xwe peyivî. Wî got : *"Avêtina gavekê ber bi serxwebûnê li Bakurê Iraqê ji bo yekbûna axa iraqî metirsî (tehlike) ye. Ev yek me xemgîn dike. Em hêvî dikin ku giftûgo li ser vê babetê werin kirin. Li vê navçeyê ne bitenê Bakurê Iraqê heye. Kurd li Mûsil û Kerkûkê jî, tevî Tirkmen û Ereban, dijîn … Me dît ku carna tişt ji çavdêriya (kontrol) me derdikevin…"*.

Li Ankara panêlek li ser serxwebûna Kurdistanê bû. Tê de ev kes amade bûn : Rawêjkarê (muşawir) serokê tirk, birêvebirê berê yê Navenda Nehreyn (suryanî), rawêjkarê serokê Kurdistana Iraqê, Hêmin Hewramî, û balyozê Iraqê li Tirkiyê, Hişam Ellawî.
*(rudaw.net, 09, 13 û 22.06.2017)*

***Kurdên Tirkiyê***
Berdevkê partiya kurdî HDP, Osman Baydemir, gelê kurd ji bo daxuyandina giştpirsiyê li ser serxwebûnê pîroz kir û got ku ewê partiya wî hertiştê ku karibe ewê bike ji bo piştgiriya birayên xwe yên Kurdistana Iraqê.

Parlementerê heman partiya jorîn, Altan Tan, got ku divê ku Tirkiye rûmeta (hurmet) xwestina gelê Kurdistana Iraqê bike. _

Ji bo amadekirina Fêstivaleke piştgiriya Giştpirsiya li ser Serxwebûna Kurdistanê, encumenek li Amedê (Diyarbekir) hat pêk anîn. Di civîna wê ya yekemîn de, Tevgera Cuhanên Kurdistanê, nivîskar Ibrahim Güçlü, muzîkjen Birader Mûsîkî, ramyar (siyasî) û ronakbîrê kurd Fuat Önen, û nimînendeyekî (temsîlcî) Kurdistana Sûriyê, Deyzen Sîtî, amade bûn.
*(rudaw.net, 11, 15 û 19.06.2017)*

***PKK***
Hevserokê encumena birêvebir a Komela Civaka Kurdistanê "KCK", Cemil Bayık, daxuyand ku giştpirsî mafekî dêmokratîk e û ku divê ku tukes li dijî wê dernekeve.

*(rudaw.net, 13.06.2017)*

***Israîl***
Serokwezîrê Israîlê, Benjamin Natanyahu, got ku gelê kurd şerker e, ku wî biserketina xwe di warê ramyariyî (siyasî) û leşkerî de peyt (isbat) kir û ku eger dewleteke kurdî ya libêral li Rojhilata Navîn ava bibe, ewê Israîl piştgiriya wê bike.
*(rudaw.net, 19.06.2017)*

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

***ŞINGAL***

***Rizgarkirina Kurdên Êzdî***
Parlementera kurd a êzdî li parlementa iraqî, Viyan Dexîl, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku wê ji hukûmeta navendî ya iraqî û berpirsiyarên iraqî alîkariya malî xwest, ji bo rizgarkirina Kurdên êzdî ku ji 11.11.2014 de di nav destên Dewleta Islamî de ne, lê ku tuyek ji wan alîkarî ne kir. Wê got jî ku hukûmeta Kurdistana Iraqê 5 milyon dolar ji bo rizgarkirina wan sarf kirin û ku piraniya wan li bajarê Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê, û hin jî li Tilafer û Beacê, li Iraqê, hatin rizgar kirin.

Buroyeke taybetî ji bo vê yekê li Duhokê hat vekirin û piraniya van kesan hatin rizgar kirin. Berpirsiyarê wê, Huseyn Koro, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku heta nuha 3.004 kes li Iraq û Sûriyê ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin. Ji wan, 1.087 jin, 583 zarok û 334 zilam. Hîn jî 3.400 kes li benda rizgarkirina xwe ne. Û wî got jî ku, ji derveyî hukûmeta Kurdistanê, tu welatekî misilman ê erebî û tu rêxistineke cihî û navneteweyî alîkariya wan ne kir.

Bê ku bikeve nav hûriyan (tefasîl), Koro got ku ev kesên revandî li bazaran hatin firotin û ku ew bi riya serokên êlan (eşîr) û kesahiyên navdar li Iraq û Sûriyê hatin rizgar kirin.

Beşek ji van kesan bi saya tevgerên hêzên Pêşmerge, şervanên Kurdistana Sûriyê (YPG) û hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî hat rizgar kirin.

***Protokolek bi Almanya re***
Hukûmeta Kurdistanê bi hêrêma almanî ya Baden Wurtemberg re protokolek (lihevkrin) ji bo dermankirina derûnî (psîkolojîk) a 2.000 jin û zarokên ku ji Dewleta Islamî hatine rizgar kirin wajo (imza) kir.

***Lihevkirinek bi Rûmanya re***
Muxtarê Şingalê, Mehma Xelîl, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku, bi alîkariya hukûmeta Kurdistana Iraqê, ewê di nêzîk de 400 jin û zarok, ji bo dermankirina derûnî, bên şandin Rûmanya.

Di Nîsan 2015 de, di panêlekê de, hati bû daxuyandin ku piştî êrîşên Dewleta Islamî, 430.000 Kurdên êzdî ji malên xwe reviya bûn, 800 hati bûn kuştin û 3.000 jin û zarok hati bûn revandin.

Tê gotin ku heta nuha, çarenivîsa (qeder) 500 kesan hîn ne diyar e û ku 600 kesên din jî ji birçîbûn û tîbûnê mirine.
*(rudaw.net, 01.06.2017)*

***Mîlîsên şîî nahêlin ku rûniştevan vegerin***
Piştî çavdêrîkirina (kontrol) bajarokê Gir Izêrê û gundên Til Benat, Til Qesab û Koço, yên navçeya Şingalê, ji aliyê mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, evên dawîn ne hişt ku rûniştevanên wan vegerin. Jimara van rûniştevanan digihêje nêzîkî 15.000.

Berê du rojan, muxtarê navçeya Beacê seredana vê navçeyê kir û bi mîlîsên şîî re giftûgo kir û ji wan xwest ku bihêlin ku desthilatên iraqî buroyeke muxtar û buroyên hukûmetê tê de vekin. Lê berpirsiyarên Heşdî Şe'bî ev yek red kir û got ku hîn karê wan li vê navçeyê kutah ne bûye (ne qediyaye).

Birêvebiriya cihî ya Mûsilê bi vê yekê hat agahdar kirin û wê jî Bexdad pê agahdar kir.

Di vajayê Heşdî Şe'bî de, li navçeyên ku li bin çavdêriya Pêşmerge de bun, 70% ji buroyên hukûmî tê de hatin vekirin û dest bi karê xwe kir.

***Trajêdiya gundê Koço***

Divê ku meriv bîne bîran ku navçeya Şingalê beşek ji navçeyên kurdî ku li derveyî desthilata hukûmeta Kurdistana Iraqê ne ye, li gora bend 140 a destûra Iraqê.

Gundê Koço, 18 km li Başûrê Şingalê, di Tebax 2014 de ji aliyê şervanên Dewleta Islamî hati bû êrîş kirin. Ew gundê yekemîn bû ku ev Dewlet dagîr (işgal) kiri bû û ku tê de yekemîn qirkirina Kurdên êzdî hati bû kirin.

Di 15 Tebax 2014 de, Dewleta Islamî qirkirineke mezzin li gundê Koço pêk anî. Di wê demê de, jimara rûniştevanên wî 830 bû. Piştî êrîşê, 200 ji wan ketin nav destên şervanên Dewleta Islamî. Ji evên dawîn, 50 hatin kuştin û 70 jî çarenivîsa wan hîn ne diyar e.

3 sal û 9 meh şûn de, ev gund ji aliyê mîlîsên şîî, Heşdî Şe'bî, hat stendin. Heta nuha, bitenê li Başûrê Şingalê, 10 gorên hevrayî hatin dîtin. 5 ji wan li gundê Koço ne.
*(rudaw.net, 14.06.2017)*

***Rûniştevanên Başîkê perestgehên xwe ava dikin***

Li bajarokên Başîk û Behzaniyê, rûniştevanên kurd ên êzdî vegera ber bi malên xwe û avakirina perestgehên xwe (ciyên ibadetê) dajon (dewam dikin). Li Behzaniyê, heta nuha 5 perestgeh hatine ava kirin û 10'ên din jî tên ava kirin. Li Başîkê, 6 ji wan ji nuh de hatin ava kirin û rûniştevan tecrube dikin ku perestgehên din jî ava bikin. Karên avakirinê, bê pere, ji aliyê rûniştevanan tên kirin, ji bo ku perê wan nîn e. Yek ji rûniştevanan, Muhib Xidir, got ku ne hukûmet û ne sazendeyeke din alîkariya wan nake.

Rûniştevanekî din ê Behzaniyê, Wad Ibrahîm, got ku heta ku Dewleta Islamî bicarek li Mûsil û Teleferê neyê ji nav birin, ewê metirsî (tehlike) bimîne.

Ewlehiya Başîk û Behzaniyê ji aliyê Pêşmerge hatiye dabîn (te'mîn) kirin û amadebûna wan dilê rûniştevanan hêsan dike.
*(rudaw.net, 27.06.2017)*

***şervan ji PKKê derdikevin***

Fermandarê êzdî yê Hêzên Pêşmerge li Şingalê, Qasim Dirbo, daxuyand ku ji 1.000 şervan bêtir ji PKKê cihê bûn, encumena xwe fesx kir û ji Şingalê derketin.
Dirbo got ku PKKê li Şingalê encumenek, weka "kanton"ên li Kurdistana Sûriyê, ava kiri bû. Lê ku berê çend rojan, wê dev ji vî erkî berda û ev encumen hat fesx kirin. Û wî got jî ku PKK kutah bû (qediya), ji bo ku baweriya rûniştevanên Şingalê pê nîn e.
*(avestakurd.net, 30.06.2017)*

***MÛSIL***

***400 kes li nexweşxaneyekê tên girtin***

Tevgerên leşkerê iraqî li Rojavaya Mûsilê, bi piştgiriya firokeyên hevbendiya navneteweyî, dajon (dewam dikin). Jin û zarokên ku di nav destên Dewleta Islamî de bûn kîlometrek di rê de diçin û ber bi ciyên ewleh (emîn) direvin.

Li gora agahdariyên leşkerî, Dewleta Islamî 400 kes li kîlera (binerd) nexweşxaneyekê girtin. Beşek ji wan serbaz (esker) û polîsên iraqî, pêşmerge, Kurdên êzdî û şervanên Dewleta Islamî ne.

Dewleta Islamî ala xwe li ser vê nexweşxaneyê bilind kir, ji bo ku ew ji aliyê hêzên hevbend were bombe kirin.

Her ku hêzên iraqî nêzîk dibin, her ku şerr girantir dibe û jimara qurbanan û têkdanan bilintir dibe.
*(rudaw.net, 02.06.2017)*

***Bajarokê Beacê tê rizgar kirin***
Mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî daxuyand ku wan bajarokê Beacê ji destên Dewleta Islamî stend. Ji 24 Gulan 2017 de, van mîlîsan gehîneka (merhele) 2mîn a tevgera xwe dest pê kir.

Beac mezzintirîn bajarokên Iraqê ye. Ew li Başûrê Mûsilê û Çiyayê Şingalê, ku rûniştevanên wî Kurdên êzdî ne, ye. Û ew li sînorê Kurdistana Sûriyê, li hemberî parêzgeha Hesîçê ye jî.

Û Beac girîng e, ji bo ku ew ciyekî derbasbûna Dewleta Islamî, di navbera Reqqa (paytexta wê li Sûriyê) û Mûsilê (paytexta wê li Iraqê) de, ye.
*(rudaw.net, 04.06.2017)*

***Dewleta Islamî 70 kesan dikuje***
Li Rojavaya Mûsilê, di 5 rojan de, Dewleta Islamî 70 girtiyên sîvîl kuştin. Hîn jî jimareke mezzin ji sîvîlan di nav destên wê de ne û ew wan weka mertaleke zindî bi kar tîne.
*(rudaw.net, 05.06.2017)*

***12 DAIŞ di nav penaberan de***
Leşkerê iraqî bajarokê Badûşê, ku girêdayî Mûsilê ye, rizgar kir. Di dema tevgerê de, nêzîkî 2.000 kes reviyan. Ji wan, jimareke şervanên Dewleta Islamî. 12 ji wan hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 16.06.2017)*

***3 DAIŞ xwe di nav mizgeftekê de diteqînin***
***Di 23 Hezîran de***, 3 şervanên Dewleta Islamî di nav mizgefteke taxeke rojavaya Mûsilê de xwe teqand. 4 kesên din hatin kuştin û gelek jî birîndar bûn.

Li taxeke din a vî bajarî, jinek xwest ku xwe biteqîne, lê hêzên ewlehiyê ew kuşt.

Ev êrîş di demeke ku tê de leşkerê iraqî piraniya taxên Rojavaya Mûsilê stendin bûn. Berpirsiyarên leşkerî dibêjin ku piştî çend rojan ewê tevayiya Mûsilê were stendin.

***40 DAIŞ tên kuştin û 4 ragirtin***
Du fermandarên Dewleta Islamî li gundekî hatin ragirtin û 30 islamiyên din jî li bajarokê Rewahê, li nêzîkî Enbarê, ji aliyê firokeyên hêzên hevbend hatin kuştin.

Li gundê Rehmaniyyê, li Rojhilata Mûsilê, 2 fermandarên DAIŞê hatin ragirtin.

Li heman navçeyê, kargeheke bomeyan a DAIŞê hat bombe kirin û 10 DAIŞ hatin kuştin.
*(rudaw.net, 24 û 26.06.2017)*

***1% ji Mûsila Kevn ji aliyê DAIŞê tê stendin***
Fermandarê hêzên hevbend, Yehya Resûl, got ku bitenê 1% ji Mûsila Kevn di destên Dewleta Islamî de ye. Û wî got jî ku korrîdorek hat vekirin, ji bo ku xwarin û destgehên tendurustiyê ji sîvîlên ku weka mertalên zindî ji aliyê DAIŞê hatine bi kar anîn werin birin.

***Di 26 Hezîran de***, fermandarekî din ê hêzên polîsê fêdêral, Şakir Cewdet, got ku navendeke tendurustiyê di vê rojê de li Bab El-Beydê hat vekirin, ji bo ku kesên azadkirî tê de werin derman kirin.
*(rudaw.net, 26.06.2017)*

***980 DAIŞ li Rojavaya Mûsilê tên kuştin***
***Di Hezîran 2017 de***, Pentagonê (wezareta amerîkî ya parastinê) daxuyand ku 980 DAIŞ li Rojavaya Mûsilê hatin kuştin û 6.000 jî birîndar bûn.

Hêzên hevbend daxuyand ku hîn jî 200 DAIŞ li Rojavaya Mûsilê hene û ku şerr li vî bajarî ber bi kutahbûnê (xelasbûn) diçe.
*(rudaw.net, 27.06.2017)*

***Mizgefta El-Bexdadî tê têk dan***
***Di Hezîran 2017 de***, hêzên li dijî têrrorê yên iraqî Mizgefta Nûrî, ku tê de serokê têrrorîstan, Ebû Bekir El-Bexdadî, "xilafet"a xwe (imperatoriya islamî) îlan kiri bû, teqand. Ew ji bo Dewleta Islamî ciyekî gelek girîng bû.
*(rudaw.net, 29.06.2017)*

***30 sîvîl tên rizgar kirin***
***Di 29 Hezîran de***, serokê polîsê fêdêral yê iraqî, Şakir Cewdet, daxuyand ku 30 sîvîl, ku ji wan 20 zarok, ji Dewleta Islamî, li taxa Şifa ya Mûsilê, hatin rizgar kirin.
*(rudaw.net, 30.06.2017)*

***10 zarokên kurd ên êzdî tên rizgar kirin***


Berpirsiyarê Buroya Rizgarkirina Kurdên Êzdî, Huseyn Koro, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku 10 zarokên din ên kurdên êzdî, yên ji 4 heta 15 salî, li Mûsilê hatin rizgar kirin û birin bal malbatên wan, li parêzgeha Duhokê.
*(rudaw.net, 30.06.2017)* _

***SÎNORÊ KURDISTAN Û IRAQÊ***

***<u>200 Islamî bi cî bûne</u>***
Fermandarên Pêşmerge daxuyand ku nêzîkî 200 şervanên Dewleta Islamî li sînorê bajarokên Xurmatû û Daqûqê bi cî bûne. Û wan got jî ku Dewleta Islamî dixwaze ku bi komen piçûk şerrê hêzên ewlehiyê bike û ku bicîbûna wê li parêzgehên Kerkûk, Selaheddîn û Diyala metirsîdar e (bitehlike).

Di du mehên dawîn de, Dewleta Islamî 4 caran êrîşî Pêşmerge û 6 caran mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî kir.

Ji berê, çiyayê Hemrînê ciyekî rahênana (tedrîb) koma têrrorîst a El-Qaide bû. Piştî 2003, hukûmeta iraqî nikari bû çavdêriya tevayiya vê navçeyê bike. Fermandarên Pêşmerge dibêjin ku bê çavdêrîkirina tam a vî çiyayî, ewê êrîşên Dewleta Islamî ranewestin.
*<u>(rudaw.net, 09.06.2017)</u>*
***XURMATÛ***

***<u>Şerr li gundekî</u>***
***Di 13 Hezîran 2017 de***, Dewleta Islamî êrîşî bingehên Pêşmerge li gundê Ebûdê kir. Evên dawîn bersîv da û jimarek ji şervanên wî kuştin. 2 Pêşmerge hatin kuştin û 6 birîndar bûn.

Di heman (eynî) demê de, Dewleta Islamî êrîşî bingehên mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û leşkerê iraqî kir.

***Di 20 Hezîran de***, serê sibê, nêzîkî 60 şervanên Dewleta Islamî ji 3 aliyan êrîşî bingehên Pêşmerge, li sînorê Zergê, kir. Şerr 3 demjimêran ajot. 4 DAIŞ û 1 Pêşmerge hatin kuştin. 1 Pêşmerge jî birîndar bû.

Di demên dawîn de, Dewleta Islamî ji Hewîcê êrîşî Pêşmerge dike.
*<u>(rudaw.net, 14 û 20.06.2017)</u>*

***KERKÛK***

***<u>Tirkmen li dijî ala kurdî</u>***
Serokê encumena parêzgarî ya Kerkûkê, Rêbwer Talabanî, daxuyand ku 5 parlementerên Eniya Tirkmenan li parlementa iraqî li dijî bilinkirina ala kurdî li ser avahiyên fermî yên parêzgeha Kerkûkê, navçeyeke kurdî ku li derveyî sînorên Kurdistanê ye, derketin. Wan dozek (da'wa) li bal dadgehê vekir (li bultenên me yên buhurî binêre). Wî anî bîran ku ev biryar bi awakî fermî (resmî), di 28.03.2017 de, bi piraniya dengan hati bû stendin.
*<u>(rudaw.net, 15.06.2017)</u>*

***<u>Pevçûn li Qeretepe û Dûzibê</u>***
***Di 24 Hezîran 2017 de***, Dewleta Islamî ji gundê Cibûrê, li Hemrînê, êrîşî rûniştevanên Qeretepe kir. 2 sîvîl hatin kuştin.
*<u>(rudaw.net, 25.06.2017)</u>*

**FIROKEYEKE SÛRÎ LI KURDISTANÊ**
Yekemîn firokeya sûrî, "Ejnihet El-Şam" (Baskên Şamê), li firokexaneya navneteweyî ya Hewlêrê daket. Amanca vê yekê xurtkirina pêwendiyên bazarganiyî û geştên (gerr) di navbera her du aliyan de ye.
*<u>(rudaw.net, 20.06.2017)</u>*

**U.N. : KURDISTAN BAŞTIRÎN CÎ YE JI BO PENABERÊN SÛRIYÊ**
Berpirsiyara li Duhokê ya buroya karên penaberan, a encumena Neteweyên Yekbûyî "U.N.", Ann Dollan, daxuyand ku Kurdistana Iraqê baştirîn cî ye ji bo pêşwazîkirina penaberên ji Sûriyê, li gel borana (krîz) aborî ku ew derbas dike. Wê dilniya (te'kîd) kir ku Herêma Kurdistanê destûr dide van penaberan ku bi azadî bilivin û kar bibînin.

*(rudaw.net, 20.06.2017)*

**219.000 PENABER LI KURDISTANÊ**
Li gora serjimartinên wezareta hundir a Kurdistanê, ji 5 salan de 219.068 penaber li bajarên Kurdistanê, Duhok, Hewlêr û Suleymaniyê, dijîn. Hin ji wan li kampan û hin jî li derve dijîn. Lê, jimara wan a rast bilindtir e, ji bo ku gelekan xwe ne nivîsî ye (xwe qeyd ne kiriye).

***Di 20 Hezîran de***, bi hinceta (munasebet) Roja Cihanî ya Penaberan, rêxistina PAW, ku li Kurdistanê ye, konfêranseke çapemeniyê li Hewlêrê, bi Rêxistina Mafên Mirov re, pêk anî.

Berpirsiyarê PAW, Hogir Çeto, got ku rêxistina wî projeyek, bi hevkariya Rêxistina Mafên Mirov û wezareta hundir a Kurdistanê, amade kiriye. Bi ser de jî, ew rastî jimarek ji penaberan hat û guhdariya xwestinan wan kir.

Çeto got ku li Kurdistanê 3 celebên penaber hene : Piraniya wan ji Kurdistana Sûriyê hatine. 2'yên din penaberên Kurdistana Îran û Tirkiyê ne.
*(rudaw.net, 21.06.2017)*

**ÎRAN AVA SULEYMANIYÊ DIBIRRE**
Ji sedema avakirina bendava bajarê Serdeştê, li Kurdistana Îranê, av li Qeladizê, ku girêdayî Suleymaniyê ye, li Kurdistana Iraqê 80% kêm bûye.
Wezîrê çandin û kaniyên avî yê Kurdistana Iraqê, Ebdulstar Mecîd, daxuyand ku ewê biçe Îranê, ji bo çarekirina vê pirsê. Li Kurdistana Iraqê 17 bendav hene.
*(rudaw.net, 24.06.2017)*

## SEREDANÊN KURDISTANÊ

***Kurdistana Sûriyê***
***Di 08 Hezîran 2017 de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya şandeke bilind a Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS", bi serokatiya Ibrahîm Biro, kir. Wê ew ji bo daxuyandina giştpirsiyê li ser serxwebûna Kurdistanê pîroz kir. Her du aliyan rewşa ramyariyî li navçeyê û li Sûriyê û rola ENKSê di nimînedîkirina (temsîlkirin) pirsa kurdî li Sûriyê giftûgo kirin û kirinên PYD tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 08.06.2017)*

***UNHCR***
***Di 21 Hezîran de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya birêvebirê Kommisarya Bilind a Neteweyên Yekbûyî "UNHCR" li Rojhilata Navîn û Afrîqa Bakur, Emîn Ewez, û şanda wî kir.

Şandê spasiya hukûmeta Kurdistanê ji bo pêşwazîkirina ewqas penaberan, ji destpêka şerrê li dijî Dewleta Islamî û şerrê Mûsilê de, kir. Birêvebir dilniya kir ku dema ku Mûsil were rizgar kirin, ewê buroya wî alîkariya rûniştevanên wê bike ku
vegerin malên xwe û ku ewê di konfêransên navneteweyî de bixwaze ku alîkariya Herêma Kurdistanê di pêşwazîkirina penaberan de were kirin.

Berzanî got ku dema ku ewê aşîtî vegere, divê ku baweriya dualiyî di nav penaberan de bi cî bibe, ji bo ku hukûmeta Kurdistanê karibe alîkariya wan bike ku vegerin malên xwe.
*(rudaw.net, 22.06.2017)*

## PÊTROL JI AMERÎKA RE

***Di 21 Hezîran 2017 de***, cara yekemîn ji 3 salan de, keştiyeke (gemî) ku 650.000 bermîl pêtrola Kurdistanê hilgirtiye ji bendera Ceyhanê ya Tirkiyê ber bi Amerîka çû.

Di 2014 de, çend keştiyên piçûk, ku pêtrol hilgirti bû, çû bûn Amerîka. Lê, di Tîrmeh 2014 de, dema ku keştiyeke ku milyonek bermîlên pêtrolê hilgirti bû û ji Kurdistanê ber bi Texasê diçû, hukûmet nerazîbûna xwe nîşan da bû û dozek (d'awa) li dijî Herêma Kurdistanê, li bal dadgeheke Texasê, vekiri bû. Ev yek, ji bo ku ew bê xwestina destûra hukûmeta iraqî çû bû.

Li gora pisporan, nuha, ji bo ku Kurdistan xwe ji bo giştpirsiya li ser serxwebûnê amade dike, ew dixwaze ku bazara xwe ya pêtrolê fireh bike û di tevgera firotinê de azadtir bibe.
*(rudaw.net, 23.06.2017)*

## SEREDANÊN DERVE

***Rûsya***
***Di 01 Hezîran de***, li Saint-Petersburgê Lutkeya (civîna bilind) Aborî ya Cihanî dest pê kir û ewê 3 rojan bajo. Serokwezîrê kurd, Nêçîrvan Berzanî, beşdarî wê bû. Şanda ku pê re bû ji van kesan pêk hati bû : Cîgirê serokwezîr Qubad Talabanî, wezîrê kaniyên sirûştî Aştî Hewramî û berdevkê hukûmeta kurdî Sefîn Dizeyî.

Berzanî rastî wezîrê rûsî yê ênêrjiyê, Alexander Novak, û berpirsiyaên şirketa rûsî ya pêtrolê, Gazprom, hat. Wî ji wan re got ku rewşa aborî ya Kurdistanê baştir bûye û ku hevkarî bi Rûsya re divê ku ne bitenê di warê ênêrjiyê de be, lê di yê pîşesazî (sina'et), çandin û yên din de jî be. Wî ji hukûmeta rûsî xwest ku şirketên xwe han bide (teşwîq bike) ku li Kurdistanê kar bikin.

Piştre, Berzanî rastî serokê rûs Vladimir Putin hat. Ew li ser pêwendiyên di navbera her du aliyan de, şerrê li dijî têrrorîsmê û rewşa Sûriyê peyivîn.

Piştre, Berzanî rastî Kurdên Rûsya û Qefqasya, û xwendekarên kurd ku li Rûsya dixwînin, hat. Wan jê re got ku wan fêdêrasyonek ava kiriye û piştgiriya xwe ji avakirina Kurdistaneke Serbixwe re nîşan da. Berzanî soz da wan ku piştgiriya wan bike.

Ev Lutkeya Aborî ya Cihanî cara yekemîn di 1997 de li Saint-Petersurgê bû bû. Ji wê gavê de, ew her sal tê pêk anîn. *(rudaw.net, 01.02 û 03.06; avestakurd.net, 02.06.2017)*

***Beljîka***
Wezîrê Pêşmerge yê Kurdistana Iraqê, Kerîm Şingalî, li Bruksêlê rastî wezîrê beljîkî yê parastin, Steven Vandeput, hat. Pê re nimînendeyê (temsîlcî) hukûmeta Kurdistanê li bal Yekîtiya Ewropî, Dilawer Ajgeyî, hebû.

Her du aliyan rewşa Kurdistan û Iraqê, şerrê li dijî Dewleta Islamî, alîkariya Beljîka ji Pêşmerge re û şandina wê ya rawêjkarên (muşawir) leşkerî ji Kurdistanê re giftûgo kirin.

Şingalî daxuyand ku ewê Beljîka, weka endameke Yekîtiya Ewropî, Pêşmergeyên birîndar derman bike, alîkariya xwe ya mirovî bêtir bike û navçeyên rizgarkirî ji nuh de ava bike.
*(rudaw.net, 06.06.2017)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

## QEDEXEKIRINA ROMANEKÊ RADIBE

Pirtûka bi navê "Hesar û Segên Bavê Min" yek ji navdartirîn romanên nivîskarê kurd Şêrzad Hesen e. Piştî 13 salan qedexekirin (censure), hukûmeta îranî destûr da çapkirina wergerandina farisî ya vê pirtûkê. Ewê di Hezîran 2017 de ji aliyê weşanxaneya îranî Çeşme were weşandin û belav kirin.

Şêrzad Hesen li Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, bûye. Di 1975 de, wî xwendina ziman û wêjeya (edebiyat) ingilîzî li zanîngeha Bexdadê kutah kir. 10 pirtûk nivîsîne.
*(rudaw.net, 03.06.2017)*

## JI 9 SALAN DE, GIRTIYEK NIKARE MALBATA XWE BIBÎNE

Girtiyekî kurd ku bi 25 salan zîndan hatiye tawanbar kirin, ji 9 salan de li zîndana Zencanê ye. Jê re qedexe ye ku malbata xwe bibîne. Ew bi piştgiriya partiyeke ramyariyî ya Kurdistana Îranê û bi şerkirina li dijî hêzên ewlehiyê yên îranî hatiye tawanbar kirin. Lê ew van tawanbarkirinan red dike û dibêje ku wî bitenê nifir kir dergevanên xwe, ji bo ku ew wî êşkence dikin.
*(rudaw.net, 07.06.2017)*

## QURBANÊN MÎNAN

Şerrê Îran-Iraqê berê 29 salan kutah bû (qediya), lê heta nuha Kurdên Îranê bûne qurbanên bi milyonan mînên ku li sînor, bi taybetî li Kurdistana Îranê, hatine danîn. Ji salan de, hukûmeta îranî wan radike, lê hîn jî gelek hene.

Di 1993 de, zagoneke (qanûn) îranî hati bû derxistin û digot ku kesên ku bi van mînan birîndar bibin ewê bên qerebû (tawîz) kirin. Eger ew bimirin, ewê malbatên wan qerebû bistînin. Lê ew têr nakin.
*(rudaw.net, 08.06.2017)*

## ŞEWATA DARISTANAN



***Di 18 Hezîran de***, çavkaniyên ji Kurdistana Îranê daxuyand ku polîsên îranî "Pasdar" û hêzên ku sînorên Îranê diparêzin êvarê çend ciyan li daristanên parêzgeha Kirmanşahê, li Kurdistanê, şewitandin. Ev yek, bi behaneya qewirandina şervanên Dewleta Islamî. Gundî civiyan, ji bo ku agir vemirînin, lê Pasdaran û dergevanên sînoran ew ne hiştin.
*(rudaw.net, 19.06.2017)*

## DERIYEKÎ SÎNORÎ

***Di 21 Hezîran 2017 de***, wezîrê îranî yê hundir, Rehmanî Fezilî, çû seredana parêzgeha Sinê, li Kurdistanê. Ew tê de rastî hin berpirsiyaran hat. Wan jê xwest ku deriyê sînorî yê Seyranbendê, yê bi Kurdistana Iraqê re, were vekirin. Ev derî li bajarê Banê ye.

Bi ser de jî, parêzgarê Sinê ji wezîr xwest ku pirsên avê li vê parêzgeha Sinê çare bike û got ku li gel hebûna kaniyên mezzin ên avê, pirsên (problêm) wê di vî warî de hene.
*(rudaw.net, 22.06.2017)*

## PÊŞMERGE LI SINÊ TÊN KUŞTIN

***Di 23 Hezîran 2017 de***, polîsê îranî, Padar, daxuyand ku hêzên wî şerrê komeke çekdar li Sinê, li Kurdistanê, kir û ku 3 endamên vê komê hatin kuştin û 3 jî birîndar bûn.

Ev Pêşmergeyên Komeleya Şoreşger û Zehmetkêşan in.
*(rudaw.net, 24.06.2017)*

## ÊRÎŞEK LI PARLEMENTA ÎRANÎ

***Di 06 Hezîran 2017 de***, 4 zilamên çekdar êrîşî parlementa îranî li Tehranê, û gora Imam Xumeynî, avakerê Komara Islamî di 1979 de, kir. 7 kes hatin kuştin û 35 birîndar bûn. Dewleta Islamî xwedî li van êrîşan derket.

***Berteka PDKÎ***
Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê (PDKÎ) daxuyand ku hukûmeta îranî kelk (istifade) ji vê êrîşê stend ji bo ku fişara (tezyîq) xwe li ser dijberiyê bêtir bike û bi sedan kesên ji navçeyên cihê yên Îranê, bi hinceta ewlehiyê, rabigire.

Di heman daxuyaniyê de, PDKÎ got ku hukûmeta îranî tecrube dike ku têkoşîna azadîxwaz a kurdî reş bike û navê wê têrrorîst dike, lê ku xelkê Îranê û yên din, di asta navneteweyî de, dizanin ku ev têkoşîn pêşverû ye. Wê ji rêxistinên navneteweyî yên mafên mirov xwest ku li dijî vê helwesta hukûmeta îranî derkevin.
*(rudaw.net, 07 û 21.06.2017)*

## ŞERR LI BELÛÇISTANÊ

***Di 14 Hezîran de***, li bajarê Şahbeharê, yê parêzgeha Sîstan û Belûçistanê, şerr di navbera hêzên ewlehiyê yên îranî û çend çekdarên rêxistina sunnî El-Forqan bû. 3 şervan hatin kuştin û 5 ragirtin.
*(rudaw.net, 14.06.2017)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

***EFRÎN***

***Leşkerê tirkî 3 hêktaran dişewitîne***
Li bajarokê Şiyê, leşkerê tirkî nêzîkî 3 hêktar erd, ku tê, ji nav tiştên din, 200 darên zeytûn hati bûn çandin, şewitandin. Rûniştevanên Efrînê dibêjin ku ji destpêka havînê de, ev leşker rezên wan dişewitîne (Efrîn navçeyeke çandinî ya gelek dewlemend e).
*(rudaw.net, 11.06.2017)*

***Dijberiya sûrî êrîşî gundan dike***
***Di 13 Hezîran de***, şervanên koma Jebhet El-Nusra, ku beşek ji dijberiya sûrî ye û ku Tirkiye piştgiriya wê dike, êrîşî gundên Celemê, Xezêwiyê û Îska kir. Şervanên kurd, YPG û YPJ, bersîv da û şerrekî tund derket. YPG girek li nêzîkî Kela Semanê stend.

ENKSê (dijberiya kurdî ku ne girêdayî PYD ye) daxuyand ku komên çekdar ên dijberiya sûrî Kurdên êzdî neçar kirin ku ji gundê Elî Qîno derkevin û dest danî ser hebûnên wan. Li ser vê yekê, encumena Efrînê ya ENKSê xwest ku encumeneke navneteweyî ya U.N., ku ew jî beşdarî wê bibe, li ser vê babetê lêkolînekê bike.

Pisporekî ramyariyî (siyasî) yê Efrînê, Muhammed Arif Ebdî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku Tirkiye piştgiriya dijberiya sûrî dike ji bo ku pêşketinên HSD'yên kurdî li Reqqa wê aciz dikin.

***Tankên tirkî li sînorê Efrînê***
***Di 20 Hezîran de***, leşkerê tirkî tank şandin sînorê Efrînê.
*(rudaw.net, 13, 19 û 28.06.2017)*

***BAKURÊ HELEBÊ***

***55 sîvîl tên revandin***
Hêzên dijberiya sûrî, Mertala Firatê, ku Tirkiye piştgiriya wan dike, sîvîl, ku ji wan 52 Kurd û 3 Ereb, ên gundên Qibşîh, Til Circî, Qeir Kelbên, Sosinbat û Numan, revandin.

Divê ku meriv zanibe ku li Bakurê Helebê bi dehan gundên kurdnişîn hene. Ew li dora Ezaz, Bab, Cerablus, Munbic û Sfîrê, heta nêzîkî sînorê tirkî, ne. Nuha, rûniştevanên wan di dijwariyeke (zoriyeke) mezzin de dijîn.
*(rudaw.net, 10.06.2017)*

# ŞERR LI DERÊN DIN ÊN SÛRIYÊ

***REQQA***

***<u>Bendavek tê rizgar kirin</u>***
Mêdyayên Hêzên Sûriya Dêmokratîk, HSD, ku ji aliyê hêzên kurdî YPG tên bi rê ve birin, daxuyand ku piştî 2 rojên şerr, wan bajarokê El-Mensûre, di navbera bajarên Tebqa û Reqqa de, rizgar kirin, 30 şervanên Dewleta Islamî kuştin û gelek ji çekkên wê stendin.

Piştî rizgarkirina Tebqa, HSD bendava Azadî, li Başûrê Reqqa, bicarek rizgar kir û dest bi paqijkirina wê ji mînên Dewleta Islmaî kir.

Ev bendav li ser çemmê Firatê ye û 3mîn girîngtirîn e li Sûriyê.

***<u>Rewşa penaberan</u>***
Reva bi pêlan a rûniştevanên Reqqa ber bi ciyên ku ji aliyê HSD hatine rizgar kirin dajo (dewam dike). Ew li kampa Eyn Îsa, li Bakurê vî bajarî, tên bi cî kirin. Ew dibêjin ku ewê tucar tirs, birçîbûn û tîbûna ku ew jiyan ji bîr nekin û ku ew weka mertalên mirovî ji aliyê Dewleta Islamî, li dijî pêşdeçûnên HSD û firokeyên hevbendiya navneteweyî, dihatin bi kar anîn.

***<u>Ketina nav Reqqa</u>***
***Di 06 Hezîran de***, birêvebiriya giştî ya HSD daxuyand ku şervanên wê ketin nav bajarê Reqqa û ku ew kuçe bi kuçe şerr dikin û pêş de diçin. Dewleta Islamî stendina xwe ya vî bajarî di 29 Hezîran 2016 de û tê de bi awakî fermî (resmî) "xilafet"a xwe daxuyandi bû.

Parêzgeha (wilayet) Reqqa 3mîn mezzintirîn bajarê Sûriyê ye. Li Bakur, bajarê kurdî Girê Sipî û Tirkiye. Li Rojhilatê, parêzgehên Hesîçê û Dêr El-Zorê. Li Başûr, navçeya Humsê û li Rojava parêzgehên Heleb û Hema.

***<u>Şerrê li dora Reqqa</u>***
Hêzên HSD li dora Reqqa jî pêş de çûn. Wan 2 gund ji destên Dewleta Islamî stendin.

***<u>Rizgarkirina keleyeke kevnar</u>***
***Di 07 Hezîran de***, HSD, bi piştgiriya Amerîka, keleya kevnar a Hireqlê, 6 km li Rojavaya Reqqa, stend. Ew ji aliyê Harûn El-Reşîd, di dema imperatoriya misilman a ebbasî de, hati bû ava kirin. Piştre, ew ji aliyê Moxolên tirk hati bû stendin. Di 2014 de, Dewleta Islamî ew stendi bû.

***<u>21 sîvîl tên kuştin</u>***
Di dema bombekirinên Dewleta Islamî de li bajarê Reqqa, ji aliyê firokeyên Hevbendiya Navneteweyî, 21 sîvîl, ku ji wan jin û zarok, hatin kuştin û jimarek birîndar bû.
*<u>(rudaw.net, 04,07,09,21 û 29.06.2017)</u>*

***<u>312 DAIŞ tên kuştin</u>***
Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD) daxuyand ku di 10 rojên pêşîn ên ketina wan nav Reqqa de, wan 4 tax stendin û ji 300 şervanên Dewleta Islamî bêtir kuştin û 7 ji wan ragirtin. Ji aliyê HSD, 15 kes hatin kuştin û 21 birîndar bûn.
*<u>(rudaw.net, 21.06.2017)</u>*

***<u>Daxuyaniya Amerîka</u>***
Li konfêranseke çapemeniyê li Washingtonê, berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Heather Nauert,

daxuyand ku ji bo stendina bajarê Reqqa, mezzintirîn hêz ji bo welatê wê "HSD" ye, ji bo ku wê beşeke mezzin ji axa sûrî ji Dewleta Islamî stend.
*(rudaw.net, 23.06.2017)*

***TABQA***

***Amerîka firokeyeke sûrî tîne xwarê***
***Di 18 Hezîran de***, firokeyên hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî firokeyeke şerr a hukûmeta sûrî anî xwarê. Wê êrîşî Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD) li gundê Cedînê, li Başûrê navçeya Tabqa, kiri bû. Gelek kes birîndar bûn.
*(rudaw.net, 19.06.2017)*

***MÛSIL***

***Keçeke Pêşmerge xwe bi şaşî dikuje***
***Di 12 Hezîran de***, Şemal Muhammed Seîd, 23 salî, Pêşmergeyeke cuhan a Kurdistana Sûriyê, ku li Mûsilê şerrê Dewleta Islamî dikir, piştî qezayekî agirberdanê wefat kir (wê, bi şaşî, bi çekkê xwe agir berda xwe). Ew ji 3 salan de Pêşmerge bû û yekemîn jin bû ku di nav Pêşmergeyên Roj (şervanên Kurd ên Sûriyê ku li Kurdistana Iraqê şerrê Dewleta Islamî dikin) de mir.
*(rudaw.net, 13.06; avestakurd.net, 15.06.2017)*

***3 Kurdên Sûriyê tên revandin***
***Di 13 Hezîran de***, komeke çekdar 3 cuhanên kurd ên Kobanî revandin û gulle kirin. Yek ji wan mir. Laşê wî 3 rojan li erd ma, piştre ji aliyê rûniştevanên Kobanî hat rakirin. 2 cuhanên din birîndar bûn û hatin birin nexweşxaneyekê li Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 16.06.2017)*

## HÊZEKE NUH LI DIJÎ KURDAN

Hêzeke nuh a dijberiya sûrî, bi navê "Suqûr El-Ereb" (Bazên Ereban) bi vîdêoyeke ku ew dibêje ku di 25 Gulan 2017 de tomar (qeyd) kiriye xwe da nas kirin. Ew tê de dibêje ku ew li dijî Kurdên Bakurê Sûriyê (Kurdistan) û bingehên partiyên wan ên ramyariyî û hevbendên wan e. Û ew dibêje jî ku ew li dijî projeyên Amerîka, Rûsya û Îranê li Sûriyê ye.
*(rudaw.net, 01.06.2017)*

## LI SÛRIYÊ DI GULANÊ DE 964 MIRÎ

Li gora rappora mehane ya Tora Mafên Mirov li Sûriyê, di meha Gulanê 2017 de, 964 kes, ji sedema şerrê di navbera leşkerê sûrî, yê rûsî, hevbendiya navneteweyî, Dewleta Islamî, YPG'yên kurdî û hêzên dijberiya sûrî de, mirin. Piraniya wan li Reqqa, Heleb, li dora Şam û Hemayê dijiyan. Wê got jî ku 273 ji van sîvîlan ji aliyê firokeyên hevbendiya navneteweyî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 02.06.2017)*

## TIRKIYE PENABERÊN KURD VEDIGERÎNE

***Di destpêka Hezîran 2017 de***, nêzîkî 500 penaberên Kurdistana Sûriyê tecrube kir ku bikevin Kurdistana Tirkiyê, piştî ku ji Kurdistana Iraqê derbas bûn, ji bo ku biçin Ewropa. Leşkerê tirkî ew ragirtin û radestî (teslîm) çekdarên dijberiya sûrî kirin.
*(rudaw.net, 11.06.2017)*

## TIRKIYE AMERÎKA REXNE DIKE

Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan ji kanala têlêvîzyona portugalî RTP TV re got ku ew ji pêwendiyên Amerîka bi PYD re û jê re dayîna çekkan ne razî ye. Û wî got jî ku ew PYD û YPG weka zarokên PKKê dibîne û ku ew jî, weka wê, têrrorîst in.

Erdoğan çû seredana kampa penaberên sûrî li Riha (Urfa), li Kurdistana Tirkiyê. Piştre, wî daxuyanî ji rojnameya rûsî Isvestiya re kirin. Wî got ku ewê welatê wî destûr nede ku dewleteke kurdî li Bakurê Sûriyê were ava kirin û ku ewê vê yekê bi riya şerr nehêle. Wî anî bîran ku wî ji Amerîka xwesti bû ku leşkerê tirkî beşdar bibe tevgera Munbic û Reqqa, lê ku hêzên hevbend, ku Amerîka serokatiya wan dike, ew ne hişt û hêzên kurdî bijartin.
*(rudaw.net, 16 û 28.06.2017)*

## TIRKIYE AVA KOBANÎ DIBIRRE

Cotkarên herêma Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, dibêjin ku ava çemmê Firatê 3 m. nizm bûye. Ew bi vê yekê Tirkiyê tawanbar (bi sûc) dikin û dibêjin ku ev yek gelek zarar gihandin rezzên wan û ew ji ava vexwarinê bêpar (mehrûm) kirin û ku ew ditirsin ku ji sedema vê yekê êlêktrîk jî were birrîn.

Çemmê Firatê, 35 km li dirêjayiya navçeya Kobanî, kaniya sereke ya ava gundiyan e.

Ji sedema şerrê li Sûriyê, tu lihevkirin di navbera van her du welatan de li ser belavkirina avê nîn e. Loma, Tirkiye çi bixwaze dike.
*(rudaw.net, 21.06.2017)*

## TIRKIYE GUNDÊN EFRÎNÊ BOMBE DIKE

***Di 27 Hezîran 2017 de***, demjimêr 23, topxaneya leşkerê tirkî gundên Qestel Cindo, Malikiyyê, Merenazê, Vêllat El-Qadî û Eyn Deqnê, ku girêdayî bajarokê Şera, yê bajarê Efrînê, ne bombe kirin. Bi ser de jî, firokeyên tirkî yên çavdêriyê (kontrol) li ser gundê Şêx Îsa, yê navçeya Şehba, firriyan.

Hêzên kurdî "HPG" bersîv da û hevserokê Rêxistina Mafên Mirov a Kantona Efrînê, Muhammed Cemîl, ev êrîşên leşkerê tirkî tawanbar kirin û got ku ew yasayên (qanûn) navneteweyî dipelixînin û bangî civata navneteweyî kir ku wan nehêle.
*(rudaw.net, 28.06.2017)*

## RÛSYA AMERÎKA TAWANBAR DIKE

***Di 21 Hezîran de***, cîgirê wezîrê karên derve yê rûsî, Mikhael Bogdanov, daxuyand ku hatina serbazên amerîkî Başûrê Sûriyê ne rewa (lêgal, şer"î) ye, ji bo ku tu destgeheke navneteweyî, ne jî hukûmeta sûrî, biryar li ser vê yekê ne stend.

Ji zû de, Amerîka rahênana (tedrîb) hêzên dijberiya sûrî, li nêzîkî sînorê Urdunê, dike. Bi ser de jî, mêdyayên navneteweyî dibêjin ku Amerîka li wê derê rokêt (fusées) danîne.
*(rudaw.net, 21.06.2017)*

## ÇEKKÊN KÎMYAYÎ LI SÛRIYÊ?

Wezîrê amerîkî yê parastinê daxuyand ku hin işaret hene ku Sûriye xwe amade dike ku di êrîşên xwe de çekkên kîmyayî bi kar bîne.

Berdevkê wezareta parastinê "Pentagon", Jeff Davis, got ku li bingeha leşkerî ya Şueyratê, li Sûriyê, ku Amerîka ji bo tevgerên xwe bi kar anî bû, hin işaretên amadekirina avêtina çekkên kîmyayî hene.

***Di 26 Hezîran 2017 de***, bi şev, Saraya Sipî hişyariyeke nivîskî ji serokê sûrî Beşşar El-Esed re şand, ku eger ew êrîşa bi çekkên kîmyayî, ku wî di 04 Nîsan 2017 de kiri bû, dubare bike, ewê ew û leşkerê wî bedelê vê yekê bi giranî bidin. Sûriye û Rûsya hişyariya pêşîn a Amerîka red kiri bû.

Di 04 Nîsan 2017 de, hukûmeta sûrî çekkên kîmyayî avêti bûn ser bajarokê Xan Şêxûnê û Amerîka di 07 Nîsan de bersîv da bû û 59 rokêt avêti bûn ser bingeha leşkerî ya sûrî li Şueyratê.

Di heman mêjuya 04 Nîsan de, Rêxistina Qedexekirina Çekkên Kîmyayî dilniya (te'kîd) kiri bû ku leşkerê sûrî bajarokê Xan Şêxûn, ê girêdayî Idlibê, bi gaza sarîn bombe kiri bû û ku di nav kuştiyan de 31 zarok hebûn.

Serokê fransî Emmanuel Macron bi têlefonê ji serokê amerîkî Donald Trump re got ku eger hukûmeta sûrî çekkên kîmyayî bi kar bîne, ewê ev her du welat bersîveke hevbeş a leşkerî bidin wê.

Amerîka û welatên rojavayî hukûmeta sûrî ya serok Esed bi van bombekirinan tawanbar dikin, lê ew vê yekê inkar dike.

***Di 30 Hezîran de***, wezareta kanadî ya karên derve daxuyand ku hukûmeta wê 1.9 milyon dolar terxan kiriye lêgerîneke li ser çekkên kîmyayî li Sûriyê.
*(rudaw.net, 27,28 û 30.06.2017)*

## PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN

***Azadkirin li Girkê Legê***

***Di 01 Hezîran 2017 de***, servîsên ewlehiyê yên PYD, Asayiş, Ednan Mehmûd, berpirsiyarê Tevgera Cuhanên Kurd û endamê encumena cihî (mehellî) ya ENKSê li Girkê Legê, azad kir. Ew ji 20 Adar 2017 de, li ber firoşgeha (dikkan) xwe, hati bû girtin û zîndan kirin, ji bo ku wî di cêjna Newrozê de mûm hilgirti bûn.

Du rojan berê vê yekê, 2 endamên din ên ENKSê, Fesla Yûsif (jin) û Neş'et Zaza, hati bûn azad kirin.
*(rudaw.net, 01.06.2017)*

***Xwepêşandan li Qamişlî***

***Di 04 Hezîran de***, ENKSê xwepêşandanek li ber avahiya U.N.ê pêk anî, ji bo riswakirina (protêsto) ragirtinên endamên xwe ji aliyê Birêvebiriya Xweser, a partiya kurdî PYD. Di nav xwepêşandiyan de, Fesla Yûsif, ku berê çend rojan hati bû azad kirin, hebû.

***Di 27 Hezîran de***, rûniştevanên taxa rojavayê ya Qamişlî, ku ji wan jin û zarok, derketin kuçan û koneke mezzin vekir, ji bo riswakirina birrînên êlêktrîk û avê ji aliyê Birêvebiriya Xweser a PYD.
*(rudaw.net, 05 û 28.06.2017)*

## FRANSA : SÎSTEMEKE FÊDÊRAL LI SÛRIYÊ

Hin kaniyên fransî ji rojnameya erebî El-Şerq El-Ewset re daxuyand ku serokê fransî Emmanuel Macron got ku danîna pergaleke (sîstêm) fêdêral li Sûriyê ewê bibe çareyeke baş ji borana (krîz) vî welatî.
Li gora heman kaniyan, ewê serokê fransî bi serokê amerîkî Donald Trump re di 14 Tîrmeh 2017 de bicive, ji bo giftûgokirina pergaleke fêdêral li Sûriyê.
*(rudaw.net, 30.06.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

## ALMANYA

***Kurdek di rojiyê de tê kuştin***



Kurdekî Sûriyê, Ebdul-Hennan Yaqûb, 33 salî, li kuçeyeke Oldenburgê ji aliyê Erebekî sûrî bi kêrekê hat kuştin, ji bo ku wî li kuçê, di meha Ramazanê (rojî) de, cixare dikişand. Ew zewicî bû û keçeke wî ya 8 salî hebû. Kujer ji aliyê polîsê almanî hat ragirtin.
*(avestakurd.net, 01.06.2017)*

***12 dergevanên serokê tirk nayên hiştin***
Li gora rojnameya almanî Welt am Sonntag, wezareta almanî ya karên derve nameyek ji wezareta tirkî ya karên derve re şand û tê de got ku 12 dergevanên serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan, ku li Washingtonê li xwepêşandiyên kurd xisti bû, nikarin bi vî serokî re werin Lutkeya G20, ku ewê di 7 û 8 Tîrmeh 2017 de li Hamburgê bibe.
*(rudaw.net, 26.06.2017)*

## UNICEF

***100.000 zarok di metirsiyê de ne***
Nimînendeyê (temsîlcî) UNICEFê li Iraqê, Peter Hawkins, daxuyaniyeke nivîskî kir û tê de got ku di şerrê di navbera leşkerê iraqî û Dewleta Islamî de, eva dawîn gelek sîvîl, ku ji wan jin û zarok, kuştin. Û wî got jî ku ji 100.000 zarok bêtir hatine kuştin, birîndar kirin û weka mertalên zindî bi kar anîn.
Ev daxuyaniya UNICEFê di dema tevgerên hêzên çekdar ên iraqî li Rojavaya Mûsilê de bû. Di vî şerrî de, Dewleta Islamî sîvîlan weka mertalên zindî bi kar tîne.
*(rudaw.net, 02.06.2017)*

## YEKÎTIYA EWROPÎ

***Piştgirî ji serxwebûna Kurdistanê re***
***Di 19 Hezîran 2017 de***, lutkeyeke (civîna bilind) ewropî li Bruksêlê dest pê kir. Wezîrên karên derve yên Yekîtiya Ewropî û kesên beşdar piştgiriya xwe ji Kurdistana Iraqê û Iraqê re nîşan da (li jor, Serxwebûna Kurdistanê, binêre). Serokwezîrê otrîşî (ê Nêmsa), Christian Kern, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku Yekîtî liberxwedana gelê kurd li dijî têrrorîstên Dewleta Islamî û fedakariya keç û xortên ku di vî şerrî de hatin kuştin gelek bilind dinirxîne û rûmeta (hurmet) wî dike.
*(rudaw.net, 22 û 23.06.2017)*

## AMERÎKA

***Azadiya olî li Kurdistana Iraqê***
Encumena Navneteweyî ya Azadiya Olan, a Kongrêsa amerîkî, rapporeke 92 rûpelî li ser azadiya olan amade kir. Wê tê de got ku ew li Kurdistana Iraqê di asteke (sewiye) baş de ye.

Lêgera USCRIFê, Jumana Qeddûr, ji ajansa Rûdawê re daxuyand : *"Ez dizanim ku ev aliyê Iraqê pirçandî û pirolî ye. Herêma Kurdistanê bi yasayan (qanûn) rûmeta (hurmet) wan dike. Bi ser de jî, rêjeyên (nisbet) nimînendeyên (temsîlcî) wan li Parlementê hatine dabîn (te'mîn) kirin"*. _

Di beşeke din a rapporê de, ev encumen rexneyan jî dike. Jumana Qeddûr dibêje : *"Li gora hin agahdariyên ku me ji çend aliyan stendin, ji Kurdên sunnî re bêtir ferzend (firset) ji bo pêwîstiyên wan ên bingehîn hatine dayîn. Hin fille, êzdî û şebek (şîî) di vî warî de gazinan dikin"*.

Hukûmeta Kurdistanê girîngî dide vê rapporê û xwe amade dike ku di rojên nêzîk de bersîva wê bide.
Ev Encumena Navneteweyî ya Azadiya Olan di 1998 de, bi yasayeke taybetî, ava bû bû. 9 kommîsêr birêvebiriya wê dikin. 5 ji wan ji aliyê serokê amerîkî û 4 jî ji aliyê Kongrêsê (parlement) hatine nîşan kirin.

Ev cara yekemîn e ku ev Encumen rapporek li ser navçeyekê amade dike. Sedema vê yekê ew e ku Kurdistana Iraqê ji du salan de şerrê Dewleta Islamî dike û roleke girîng di vî şerrî de dilîze. Bi ser de jî, giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê 2mîn sedem e ji bo nivîsîna vê rapporê.
*(rudaw.net, 27.06.2017)*

***Brett McGurk li Reqqa û Ankara***

***Di 28 Hezîran 2017 de***, şandê taybetî yê amerîkî ji bo têkoşîna li dijî Dewleta Islamî, Brett McGurk, bi Encumena Sîvîl a Reqqa û hêzên dijberiyê yên sûrî, HSD, ku bi taybetî Kurdên partiya YPG bi rê ve dibin, re civiya.

Piştre, ***di 30 Hezîran de***, ew çû Ankara û tê de rastî berpirsiyarên wezareta tirkî ya parastinê hat. Wî agahdarî li ser tevgera bajarê Reqqa, dayîna çekkên amerîkî ji YPG re û rewşa ewlehiyê li navçeyê dan wan.
*(rudaw.net, 30.06.2017)*

## BELJÎKA

***Rasthatineke tirkî-amerîkî***

Wezîrê tirk ê parastinê, Fikri Işık, û hevkarê wî yê amerîkî, James Mattis, li Bruksêlê civiyan. Li gora mêdyayên tirkî, Işık nerazîbûna xwe ji hevkariya Amerîka bi şervanên kurd ên Sûriyê, YPG, re nîşan da. Û Mattis bersîva wî da û got ku ev hevkarî demkî (muweqqet) ye û ku piştî stendina bajarê Reqqa ji destên Dewleta Islamî, ewê Amerîka çekkên ku dane YPG vegerîne. *(rudaw.net, 28.06.2017)*

***Konfêransa Filleyan li Parlementa Ewropî***

Konfêransek li ser Filleyên deşta Nînewa, li nêzîkî Mûsilê, li Parlementa Ewropî, li Bruksêlê, hat pêk anîn.

Pêkaniyê konfêransê, Lars Adakson, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku di berjewendiya (menfeet) Ewropiyan e ku nexşeya ernigariyî (xarita coxrafî) ya Rojhilata Navîn û Iraqê weka xwe bimîne, ji bo ku ewê ev yek aşîtiyê li navçeyê dabîn (te'mîn) bike.

Li gel ku li vê deşta Nînewa Kurdên êzdî, Şebek (şîî) û Tirkmen jî dijî, jimara wan li vê konfêransê bi qasî tilliyên destan bû. Nimînendeyên (temsîlcî) Serokê Kurdistana Iraqê û Partî Dêmokratî Kurdistanê amade bûn.

Nimînendeyê hukûmeta Kurdistana Iraqê li bal Yekîtiya Ewropî, Dilawer Ajgeyî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku biryara çarenivîsa (qeder) van navçeyan di destê rûniştevanên wan de ye, ku divê ku ew bixwe daxwaziyên xwe zelal bikin û ku hukûmeta Kurdistanê rûmeta (hurmet) biryara wan û piştgiriya wan dike.

Nimînendeyên fille yên vê navçeyê otonomiyê dixwazin û bersîv nadin pirsên Hewlêr yan Bexdadê.

Serokê Kildanî û Asûriyan, Neşet Samoyî, daxuyand ku ew ji bo navçeyeke otonom dixebitin, lê ku biryara dawîn di destên gelê wan, bi riya giştpirsiyekê, de ye.
*(rudaw.net, 30.06.2017)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

## KURDISTANA IRAQÊ

***Şahciwaneke êzdî***



Lîdya Şêx, ji bajarê Başîkê, 22 salî ye. Ew şahciwana (bedewbûn, xweşikbûnê) Kurdên ji ola êzdî ye. Di 2017 de, ew beşdar bû bû yariyeke (musabeqe) bedewbûnê ya Iraqê jî.
*(rudaw.net, 05.06.2017)*

***Pêşangeheke hunera dest a Rojhilata Navîn***

Li bazara Downtown, li Hewlêrê, pêşangeheke hunera dest "artisanat" a Rojhilata Navîn û Îranê dest pê kir. Ewê 15 rojan bajo (dewam bike). Ji 80 hundermendên dest bêtir beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 17.06.2017)*

***Keçeke cuhan yaneyeke futbolê digihîne***

Helale Feysel keçeke cuhan a bajarokê Soran, ku girêdayî Hewlêrê ye, ye. Wê yaneyeke (équipe) futbola jinan, ku ji 14 keçên cuhan pêk hatiye, ava kir. Ew dibêje ku şirketa Korek Telecom, zanîngeh û Navenda Werzişî ya Soranê pêwîstiyên wan ên werzişî dabîn (t'emîn) kirin û ku rêxistinên din piştgiriya wan kir. Û wê got jî ku amanca wan bêtir girîngî dayîna werzişa jinên Soranê ye.
*(rudaw.net, 23.06.2017)*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

***200.000 geştiyar li Surê***

Ji sedema şerrê di navbera leşkerê tirkî û PKKê de, jimara geştiyaran (tûrîst) li Amedê (Diyarbekir) 90% kêm bû bû. Lê, piştî kutahbûna (xelasbûn) pevçûnan, ev rêje (nisbet) 51% bilind bû. Ango, nuha jimara wan gihajtiye 200.000. Ew bi taybetî diçin seredana taxa ku tê de dîwarê navdar "Sur" heye.

Serokê Odeya Tûrîzmê, Edip Paçal, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku vê odeyê lihevkirinek bi wezareta perwerdeyê re wajo (imza) kir, ji bo ku wezaret îsal xwendekarên 83 bajaran bîne, ji bo seredana Amed û Surê. Ango, ewê ev jimar bigihêje 600.000.
Taxa Surê bi dîwarê li dora bajêr (sur) û avahiyên xwe yên dîrokî, yên 27 şaredariyan (medeniyyet), ku temenê wan nêzîkî 7.000 sal e, naskirî ye. Loma gelek geştiyar seredana wê dikin.
*(rudaw.net, 09.06.2017)*

***90% ji nîskan ji Kurdistanê tên***

90% ji nîskên Tirkiyê ji sê bajarên Kurdistanê, Amed (Diyarbekir), Riha (Urfa) û Mêrdînê (Mardin) tên. Tê de salane 420.000 ton tên berhem anîn.
*(rudaw.net, 10.06.2017)*

***Werzişvaneke kurd 27 caran bi ser dikeve***
Keça kurd Mizgin Ay, 27 salî, ji bajarê Êlihê (Batman, li nêzîkî Dersîmê) ye. Ew ji zû de li Beypazarê, li nêzîkî Ankarê, bi malbata xwe re dijî. Ji 10 saliya xwe de, ew "jogging" dike. Heta nuha, ew 27 caran bûye yekemîn.
*(rudaw.net, 22.06.2017)*

## KURDISTANA SÛRIYÊ

***Mirina helbestvanekî mezzin***

Helbestvanê kurd ê navdar Ferhad Îçmo piştî nexweşiyeke giran wefat kir. Ew 57 salî bû. Wî digot : *"Eger hûn min li kuçeyên Qamişlî nebînin, werin gora min".*

Îçmo li Qamişlî di 1960 de bû bû û li zanîngeha Helebê endazyarî (architecture) xwendi bû. Piştre, wî dest bi nivîsînê kiri bû. Berhemên wî yên çapkirî ev in : Teniştа Zozan, Piştî çi, Evîna te, Pelên Sipî, Qêrîna yekemîn, Landika yek, Landika du.
*(rudaw.net, 09.06.2017)*

***10mîn bîranîna wefata helbestvanekî***
***18 Hezîran 2017*** bîranîna 10mîn a mirina helbestvanê kurd ê navdar Seydayê Keleş e. Ew yek ji helbestvanên klassîk, weka Tîrêj, Nûjen, Nûriyê Hesarî … bû.

Navê wî yê rast Melle Huseynê Bizgûrî bû. Ew di 1930 de, li gundê Bizgûrê, yê girêdayî Mêrdînê, li Kurdistana Tirkiyê bû bû û di 18 Hezîran 2007 de li Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, miri bû. Li gel ku ew sêwî û hejar (feqîr) bû, wî berhevokên giranbuha (bi qîmet) yên helbestan hiştin: Em û Dijmin, Rêka Gel, Derdê Millet, Ronahî, Xebat, Halabca. Wî gelek girîngî dida folklora kurdî û pirtûkek li ser vê yekê, "Gotinên Bav û Kala", weşand. Wî digot ku ew li bin kartêkirina (te'sîr) helbestvanê kurd ê navdar Cigerxwîn de bû.
*(rudaw.net, 19.06.2017)*

## SÛRIYE

***Hunermendekî ereb ji muzîka kurdî hez dike***
Hunermendê navdar ê ereb ê sûrî, Husam Tehsîn Bêk, ji ajansa kurdî Rûdawê re daxuaynd ku muzîk û dîlanên kurd wî gelek dikişînin û ku rihên wan di dîrokê de gelek kûr in. Û wî got jî ku ew dixwaze ku biçe seredana Hewlêrê, paytexta Kurdistana Iraqê.

Husam Tehsîn Bêk lîzvan (actor), stranbêj, "compositor"ê muzîkê û mamosteyê dîlanên gelerî ye.
*(rudaw.net, 13.06.2017)*

## UNESCO

***Şanoya kurdî dibe endama ITI***
Şanogerê kurd Ihsan Osman ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ***di 28 Gulan 2017 de***, ew li Hamburgê, li Almanya, beşdar bû konfêransa Dibistan Cihanî ya Şanoyê û bû endamê wê.

## ALMANYA

***7mîn Fêstivala Fîlma Kurdî***
***Di 16 Hezîran de***, 7mîn Festivala Fîlma Kurdî li Berlînê, bi fîlma Mala Bê Ban, dest pê kir û ewê 10 rojan bajo (dewam bike). Ewê 28 fîlmên kurt û dirêj werin nîşan dan.
*(rudaw.net, 16.06.2017)*

***Xelat ji Kurdekî re***
Muzîkjenê kurd ê navdar, Seîd Yûsif, Xelata Radioya Arta, li Almanya stend.
*(rudaw.net, 25.06.2017)*

## TIRKIYE

***Pêşangeheke fotoyan***
5 fotografên (wênekêş) navdar li cihanê, ji netewahiyên cihê, li Ankara pêşangeheke fotoyan li ser penaberan, ku ji wan ên Kurdistana Iraqê di 1991 de (piştî nijadkujiya Halabca, li Kurdistana Iraqê, di 1988-1989 de), pêk anî. Ev fotograf (wênekêş) ev in : Coşkun Aral, Sergey Ponomarev, Îsa Tûma, Roland Neveu û Rehman Roslan.
*(rudaw.net, 23.06.2017)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl hatiye nivîsîn, ji aliyê Şîrîn û Nevîn Gerits hatiye wergerandin hollandî û ji aliyê Şîrîn Gerits hatiye wergerandin ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter Gerits hatiye kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*



